

# BUROYA KURDÎ

## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 144 - Nîsan 2017**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.bekurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ
*ADAR 2017*

**KONFÊRANS**

***26.03.2017 : Rewşa nuha ya Kurdistana Îranê***
**Zaralî Nikraweş**, ji Kurdistana Îranê, wergêrekî sondxwarî, li ser rewşa nuha ya Kurdistana Îranê peyivî:





Ji bo têgihajtina rewşa îro, pêwîst e ku meriv vegere destpêka sepandina (farzkirin) rejîma Dewlet-Netewe, piştî darbeya leşkerî ya Reza Xan, di 26 Sibat 1921 de, û daxuyandina (îlan) xwe weka Şahê Îranê di 1925 de.

Li bin navê Îranê, Şah rejîmeke navendî, ku ziman û çanda farisî li ser gelên din ên vî welatî farz kirin : Kurd, Azerî, Belûç, Ereb, Lor û Tirkmen, vedişart. Kurrê wî, Reza Şah, û piştre birêvebirên olî yen nuha, Ayatullahan, heman ramyariyê (siyaset) sepand.

Serhildanên gelên cihê bûn : a kurdî ya Sîmko di 1921 de, azerî ya Mohammad Xayabanî di 1925 de, erebî ya Şêx Xezal di 1927 de, tirkmenî ya Osman Axon di 1929 de, lorî a Serdar Asead di 1931 de, belûç a Neranî di 1946 de. Di heman sala 1946 de, Komara Kurdî ya Mahabadê, ya Qazî Muhammed, û Komara Dêmokratîk a Azerbaycanê, ya Pîşawerî, hatin daxduyandin (îlankirin).

Ji dema hatina rejîma olî ya farisî de, ku ji aliyê Ayatollah Xomeynî di 01 Sibat 1979 de hati bû damezrandin, pelixandina Kurdan û gelên din xurttir bû. Encama vê yekê heta 2017 : 8.000 girtiyên ramyariyî (siyasî) hatin îdam kirin, ji 1.000 şervan bêtir hatin kuştin, bi deh hezaran kes hatin zîndan û êşkence kirin, bi sedan jin hatin tecawuz (êrîşa cinsî) kirin, 350-400 dijberên kurd, li Kurdistanê û li Ewropa, hatin kuştin. Ji van evên dawîn, Dr Abdul-Rahman Qasimlû, sekreterê giştî yê PDKÎ (Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê), li Vyênna, di 1989 de, û yê piştî wî, Sadiq Şerefkendî, li Berlînê, di 1992 de.

**BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN**

***04.03.2017 : Fîlm li ser pîrejinên Subsahara (Afrîqa)***
Mala çanda flamanî-afrîqî, **Kuumba**, fîlmeke belgeyî li ser pîrejinên Subsahara, li Afrîqa, "Seniors Susahariennes", nîşan da. Ev yek, bi hevkariya 5 rêxitinên ku endamên fêdêrasyona Internationaal Comité ne (Zintv, Mangoboom in Bloeil, Mala Êzdiyên Beljîka,

SSV/Solidarié Sociale aux Vulnérables û Kenniscentrum Welzijn, Wonen en Zorg).

Piştî fîlmê, giftûgoyek ji aliyê Masitu Lufungula, hevkarê perwerdeyî yê Internationaal Comité, û Leyla Çildergûşî, seroka Mala Êzdiyên Beljîka û ku li bal rêxistina "Solidariteit voor het Gezin" kar dike, hat bi rê ve birin. Li dawiyê rêsêpsyonek hat pêşkêş kirin.

***08.03.2017 : Maseya Dyalogê***
**Internationaal Comité**, ku Buroya Kurdî endama wê ye, maseyên dyalogê, ji bo kesên ji netewahiyên cihê, pêk anîn. Babeta wê rojê "Gender en Loonkloof" (Cihêtiya Mûçeyan "meaş" di navbera Jin û Mêran de) bû.

***11.03.2017 : Civîna giştî (kongre)***
**Fêdêrasyona Internationaal Comité** civîna xwe ya giştî li bajarê Hasseltê kir. Nêzîkî 60 rêxistinên edam amade bûn. Rapporên çalakî û maliyê, yên 2017, hatin pêşkêş kirin û pirs hatin pirsîn.

***18..03.2017 : Newroz***

**Partiyên ramyariyî (siyasî) yên cihê, yên 4 perçeyên Kurdistanê**, sersala kurdî Newroz, li navença çandî Den Horinck, li Zellik, li nêzîkî Bruksêlê, pîroz kir. Bernameyeke hunerî ya gelek dewlemend hat pêşkêş kirin û beşdaran bi demjimêran dîlan kir. Gelek malbat, tevî zarokên piçûk hebûn. Piraniya wan cillên kurdî yên rengîn li xwe kiri bûn.



# NÛÇE JI KURDISTANÊ

***ADAR 2017***

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê DE**

***<u>Sînorê Kurdistana Iraqê</u>***
***Di 01 Adar 2017 de***, serleşkerê tirk daxuyand ku ji demjimêr 19.33 heta 20.28 a şeva 28 Sibatê, wî 16 bingehên PKKê li Kurdistana Iraqê, li navçeyên Qendîl, Avaşîn û Basyanê, bombe kirin.
*<u>(rudaw.net, 01.03.2017)</u>*

**RAGIRTIN**

***<u>Hev-şaredarê Bêşebabê (Şirnex)</u>***
***Di 01 Adar 2017 de***, serê sibê, polîsê tirkî Nurettin Ataman, hev-şaredarê bajarokê Bêşebabê, yê girêdayî Şirnexê, û endamê partiya kurdî DBP, li mala wî ragirt û lêgerîn li avahiya şaredariyê kir.

Ataman hat birin birêvbiriya ewlehiyê, ji bo jêpirsînê, û du kesên din, Cindi û Davud Ataman, jî hatin ragirtin.
*<u>(rudaw.net, 01.03.2017)</u>*

***<u>Serokê Rêxistina Mafên Mirov a Amedê</u>***
***Di 15 Adar de***, serê sibê, serokê şaxa Amedê (Diyarbekir) a Rêxistina Mafên Mirov "IHD", Raci Bilici, li mala xwe hat ragirtin. Li gora daxuyaniya dozkarê Amedê, 11 kes, ku ji wan Bilici, bi tawana (sûc) hebûna pêwendiyên wan bi rêxistineke têrrorist re, hatin ragirtin. *<u>(rudaw.net, 15.03.2017)</u>*

***<u>Tevgera Newrozê : 999 ragirtin</u>***
Bi hinceta Newrozê, leşkerê tirkî di hefteyekê de 230 tevger kirin û 999 kes ragirtin.
*<u>(rudaw.net, 20.03.2017)</u>*

***<u>Parlementereke Amedê</u>***




***Di 23 Adar de***, serê sibê, Emine Ayna, parlementera Amedê û hev-seroka berê ya partiya kurdî DBP, li mala xwe hat ragirtin. Di 30 Çile 2016 de, wê daxuyandi bû ku ew nema siyasetê dike.
*<u>(rudaw.net, 23.03.2017)</u>*

***Hev-serokê partiya DBP***
Dadgeha 5mîn a tawanên (ceza) giran hev-serokê partiya kurdî DBP, Kamuran Yüksek, bi 8 sal û 9 meh zîndan, ji bo *"endambûna rêxistineke têrrorist"*, tawanbar kir.
*(rudaw.net, 28.03.2017)*

**RAGIRTINA BIYANIYAN**

Li ser riya Maraş-Dîlokê (Antep), hêzên ewlehiyê yên Maraşê 63 biyanî, ku ji wan 50 Afxanî, 8 Pakîstanê û 5 Bîrmanî, ragirtin. Ew bi awakî ne rewa (illegal), bi otobusê, hati bûn. 2 ajo (şoffor) û alîkarekî wan jî hatin bin çav kirin.
*(rudaw.net, 27.03.2017)*

**HEV-ŞAREDAREK JI KAR TÊ AVÊTIN**
***Di 01 Adar de***, wezareta hundir hev-şaredarê Agirî, Sırrı Sakık, ji kar avêt û li ciyê wî parêzgar (walî) Musa Işin danî. Hev-şaredara Agirî, Mukades Kubilay, ji 28.12.2016 de hatiye ragirtin.
*(rudaw.net, 01.03.2017)*

**QEDEXEKIRINA HATÛÇÛNÊ**

***Licê (Amed)***
***Di 05 Adar de***, parêzgarê bajarokê Licê, yê girêdayî Amedê, qedexekirina hatûçûnê li 18 gundên vî bajarokî daxuyand (îlan kir).
*(rudaw.net, 05.03.2017)*

***Çewlik (Bingöl)***
***Di 19 Adar de***, serê sibê, tevgereke qedexekirina hatûçûnê li bajarok û gundên Dara Hênê, yê girêdayî Çewlikê, dest pê kir.
*(rudaw.net, 19.03.2017)*

**PARLEMENTEREK TÊ AZAD KIRIN**
***Di 16 Adar de***, parlementerê partiya kurdî HDP, Idris Baluken, ku li zîndana Amedê ye, hat azad kirin. Di 2013 de, dozek (da'wa) li dijî wî li Çewlikê (Bingöl) hati bû vekirin, ji bo ku ew beşdar bû bû mîtîngekê li vî bajarî.
*(rudaw.net, 16.03.2017)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***PEVÇÛN LI ŞINGALÊ***
***Di 03 Adar 2017 de***, serê sibê, pevçûn di navbera Pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê, ku navê xwe kiriye "Roj" û ku nêzîkî Partî Dêmokratî Kurdistana Iraqê ne, û Yekîneyên Parastina Şingalê "YPŞ", ku nêzîkî PKKê ne, li gundê Xanesorê, yê bajarokê Sinûnê, yê girêdayî Şingalê, navçeyeke Kurdên yezîdî ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bûn kuştin, bûn. Xanesor li sînorê Kurdistana Sûriyê ye û 3 bingehên YBŞ tê de hene.

Berê rojekê, êvarê, van Pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê çû bûn Şingalê, ji bo ku alîkariya xelk bikin, lê berpirsiyarên yezîdî yên "YBŞ" û beşa wan a jinan, "YJŞ" ev alîkarî red kir û got ku wan hîn di 2014 de navçeya xwe ji Dewleta Islamî rizgar kiri bû û ku pêwîstiya wan bi alîkariyê nîn e.

Piştî pevçûnên di navbera her du aliyan de, 7 şervanên YBŞ hatin kuştin û 20 birîndar bûn.

***Roja din***, di 04 Adar de, fermandarên Pêşmerge konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de got ku wan 5 "YBŞ"yên ku berê rojekê girti bûn azad kirin.

Berdevkê serokê Kurdistanê, Omîd Sebah, daxuyand ku serok Berzanî ji bo van bûyeran gelek dilgiran de û ku li Herêma Kurdistanê bitenê destgehên hukûmetê berpirsiyarên birêvebirinê ne.

Piştî van pevçûnan, 5 partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdistana Tirkiyê, yên nêzîkî PKKê (HDP, DBP, KCD, TJA, HDK) daxuyaniyeke hevbeş li Amedê (Diyarbekir) kir. Wan Pêşmergeyên "Roj" rexne kir û got ku divê ku nebêjin "Rojavaya Kurdistanê" (Kurdistana Sûriyê", lê bêjin "Fêdêrasyona Bakurê Sûriyê".

***HÊZÊN ŞINGALÊ XWE DIGIHÎNIN WEZARETA PÊŞMERGE***
***Di 12 Adar 2017 de***, Hêza Parastinê "Êzîdixane" bi awayekî fermî (resmî) xwe gihand wezareta Pêşmerge ya Kurdistana Iraqê. Ew ji 4.870 şervanan pêk hatiye û ji dema ku Dewleta Islamî êrîşî navçeya Şingalê kiri bû de ava bûye.
*(rudaw.net, 13.03.2017)*

***8 JIN Û 3 ZAROKÊN YEZÎDÎ TÊN RIZGAR KIRIN***
***Di 19 Adar de***, berpirsiyarê buroya Azadkirina Keç û Jinên Kurd ên Yezîdî, Huseyn Koro, daxuyaniyeke çapemeniyê kir û tê de got ku di wê rojê de 8 jin û 3 zarokên yezîdî ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin. Û wî got jî ku heta nuha, 2.936 kes hatine rizgar kirin, lê ku hîn jî 3.400 kesên din di nav destên Dewleta Islamî de ne.

Koro got jî ku heta nuha, rizgarkirina hemî van kesan bi alîkariya hêzên Pêşmerge û servîsên ewlehiyê (emniyyet) yên Herêma Kurdistanê bûye.

***Di 31 Adar de***, keçeke cuhan a yezîdî, ya 22 salî, ji Dewleta Islamî hat rizgar kirin û vegerandin malbata wê. *(rudaw.net, 19.03.2017)*

***RIYA DI NAVBERA DUHOK Û ŞINGALÊ VEKIRÎ YE***

Piştî vekirina riya di navbera Duhok û Şingalê de, bazarganî ji nuh de dest pê kir û rûniştevanên Şingalê hêsantir xwarin û pêwîstiyên din ên rojane distînin. Bazargan dixwazin ku riya Xanesorê jî were vekirin.
*(rudaw.net, 27.03.2017)*

***DEWLETA ISLAMÎ ÊRÎŞÎ ŞINGALÊ DIKE***

***Di 28 Adar 2017 de***, serê sibê, Dewleta Islamî cardin êrîşî Şingalê kir. Şervanên wê xwe di nav kargeheke çimento de, li Rojavaya Şingaê, li ser riya Tileferê, veşarti bû. Pêşmerge êrîşî wan kir û 5 ji wan kuştin. Ê 6mîn xwe teqand.
*(rudaw.net, 28.03.2017)*

***BOMBEKIRINÊN LEŞKERÊ TIRKÎ***

Di lidûketina PKKê de, leşkerê tirkî du rojan gund û bajarokên navçeya Amedî, ya girêdayî Duhokê û nêzîkî sînorê Kurdistana Tirkiyê, bombe kirin.

Ji 15 salan de, ji sedema van bombekirinan, 360 gundên Amedî hatin vala kirin. Ji 2016 de, 200 malbat malên xwe hiştin û 2 dibistan hatin girtin.
*(rudaw.net, 26.03.2017)*

***PKK PÊŞMERGEYEKÎ SWÊDÎ DIREVÎNE***

***Di 28 Adar de***, wezareta Pêşmerge daxuyand ku Yekîneyên Parastina Şingalê, ku girêdayî PKKê ne, pêşmergeyekî swêdî yê xwebexş, Tony Ekman, ê 51 salî, revand. Ew di 2015 de hati bû Kurdistana Iraqê û xwe gihandi bû Pêşmerge, di şerrê Şingalê li dijî Dewleta Islamî de.
*(rudaw.net, 28.03.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Rûsya***

***Di 01 Adar 2017 de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya alîkarê birêvebirê giştî yê servîsa Rojhilata Navîn a wezareta rûsî ya karên derve, Valerian Chunayev; balyozê rûsî li Iraqê, Maksim Maksimov; konsulê giştî yê Rûsya li Hewlêrê, Viktor Simakov, û şandeke şirketa rûzî ya gazê, Gazprom, kir.

Şandê dilniya (te'kîd) kir ku ew dixwaze ku bi Herêma Kurdistanê re, di hemî waran de, hevkariyê bike. Gazprom bername û çalakiyên xwe li Kurdistanê ravekirin û dilniya (te'kîd) kir ku ew dixwaze ku wan bajo (dewam bike). Bi ser de jî, rewşa Rojhilata Navîn, şerrê li dijî Dewleta Islamî û tevgera Mûsilê hatin giftûgo kirin.

Li tenişta serok Berzanî, serokê kabîneya wî, Fuad Huseyn, û birêvebirê pêwendiyên derve yen Herêma Kurdistanê, Fellah Mustafa, hebûn.
*(rudaw.net, 01.03.2017)*

***Yekîtiya Ewropî***

***Di 06 Adar de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya kommîserê ewropî ji bo karên mirovî û boranan (krîz), Christos Stylianides, û şanda wî, kir. Cîgirê serokwezîr, Qubad Talabanî, û jimarek ji wezîrên Kurdistanê jî amade bûn.

Şanda ewropî spasiya Kurdistanê ji bo pêşwazîkirina ewqas penaber kir û soz da ku alîkariya wê bike. Berzanî got ku serbazên iraqî yen ku li Mûsilê birîndar bûn li nexweşxaneyên Kurdistanê tên derman kirin û ku ev yek bû sedema kêmbûna dermanan. Û wî got jî ku di vî warî de, ne Bexdad, û ne civata navneteweyî, têr alîkariya Kurdistanê nakin.
*(rudaw.net, 07.03.2017)*

***Amerîka***

***Di 13 Adar de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya şandê taybetî yê serokê amerîkî di hevpeymaniya navneteweyî li dijî DAIŞê de, Bret McGurk, û şanda wî kir. Wan rewşa Iraq û navçeyê, şerrê li dijî Dewleta Islamî û pêşdeçûna hêzên iraqî li Mûsilê giftûgo kirin.

Berê rojekê, McGurk konfêranseke çapemeniyê li Bexdadê kiri bû û tê de daxuyandi bû ku nêzîkî 60% ji axa iraqî, ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bû vegirtin, hatiye rizgar kirin û ku nêzîkî 2 milyon Iraqî hatin kutah (azad) kirin.

McGurk got ku Pêşmergeyan roleke mezzin di şkestina DAIŞê de lîzt û ku wan çend navçe li dora Mûsilê rizgar kirin. Û wî got jî ku heta nuha, ji 180 serokên DAIŞê bêtir, ên nêzîkî serokê wê El-Bexdadî, hatine kuştin.
*(rudaw.net, 13.03.2017)*

***U.N.***

***Di 30 Adar de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya sekreterê giştî yê U.N.ê, Antonio Guterres, kir. Piştre, wî daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de got ku wan rêfêranduma ku ewê di nêzîk de li
Ser serxwebûna Kurdistana Iraqê bibe giftûgo kir û ku Guterres spasiya Kurdistanê ji bo şerrê wê li dijî Dewleta Islamî û pêşwazîkirina bi hezaran penaber kir. Û wan rewşa piştî şerrê li dijî DAIŞê jî giftûgo kir.

Piştre, Guterres çû seredana kampên penaberan li Hewlêrê. Piştî guhdarîkirina penaberan, wî konfêranseke çapemeniyê kir û tê de got ku ramana navneteweyî zêde guhdariya pirsên wan nake û ku karên hukûmeta Kurdistana Iraqê, UNê û rêxistinên civaka sîvîl têr nakin.

Wezîrê iraqî yê koçbûnê, Derbaz Muhammed (Kurd), got ku Guterres soz da ku alîkariyê bêtir bike.
*(rudaw.net, 30 û 31.03.2017)*

**118 DAIŞ LI KERKÛKÊ TÊN RAGIRTIN**
Di 6 mehên dawîn de, hêzên ewlehiyê 118 şervanên Dewleta Islamî li 6 kampên penaberan ên Kerkûkê ragirtin. Ji 600.000 penaber bêtir li Hewîce, Diyala, Selaheddîn, Enbar, Babil, Bexdad û Nînewe hene.
*(rudaw.net, 08.03.2017)*

**ALA KURDÎ LI KERKÛKÊ**



***Di 20 Adar de***, di cêjna Newrozê de, ala kurdî li kela Kerkûkê, li tenişta ala iraqî, hat bilind kirin. Ev yek bi amadebûna parêzgarê kurd, Necmeddîn Kerîm, û berpirsiyarên idarî û siyasî. Dirêjbûna wê 10 m., firehbûna we 5m. û bilindbûna we 20 m. bû.

Ereb û Tirkmen, û nimînendîtiya (temsîlcîtî) Iraqê li U.N.ê (UNAMI), nerazîbûna xwe nîşan da.

Di 14 Adar de, Necmeddîn Kerîm di daxuyaniyeke nivîskî de daxuyandi bû ku ewê zimanê kurdî bi awakî fermî, li tenişta yê erebî, li Kerkûkê were bi kar anîn, û ku ev yek li gora destûra iraqî ye. Û wî goti bû jî ku kesên ku li dijî vê biryarê derkevin ewê bên ceza kirin.

***Di 28 Adar de***, encumena parêzgariyî ya Kerkûkê civiya û deng da bilindkirina ala kurdî li ber sazendeyên fermî (daireyên resmî), li tenişta ala iraqî. Piştre, parêzgar Necmeddîn Kerîm konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de ev biryar bi dîrokî û li gora yasaya iraqî wesf kir.

Lê berdevkê hukûmeta iraqî, Sadî Hedîsî, daxuyand ku ev yek li dijî yasa û destûra iraqî ye û ku ewê hukûmeta wî helwesta xwe nîşan bide.

***Di 29 Adar de***, komeke Tirkmenan li ber parêzgariya Kerkûkê xwe pêşan da û tecrube kir ku bikeve hundir. Polîs ket navberê. 2 xwepêşandî bi sivikî birîndar bûn.

Serokê berê yê tirk, Abdullah Gül, got ku bilindkirina ala kurdî li Kerkûkê ji bo yekbûna neteweyî û bihevrejiyana Tirkmen, Ereb û Kurdan metirsî (tehlike) ye.
*(rudaw.net, 22, 28 û 29.03.2017)*

**ŞERR LI MÛSILÊ**

***2 Çeçenên Dewleta Islamî tên kuştin***
Wezareta iraqî ya parastinê daxuyand ku çêkerê firokeyên bê pîlot, ê Dewleta Islamî, birêvebirê berê yê erebeyên Mercedes û 6 "emîr"ên din li Rojavaya Mûsilê hatin kuştin.

Ê yekemîn, ê bi navê Ebû Muhammed Rûsî, rûsî bû, û yê 2mîn, Ebû Umer Fransî, Tunisî bû.
*(rudaw.net, 11.03.2017)*

***700 DAIŞ li Rojavaya Mûsilê tên kuştin***
Fermandarê hêzên iraqî yen antî-têrrorê, Menî Sedî, daxuyand ku li Rojavaya Mûsilê 700 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin û ku piraniya wan biyanî û xwekujerên ku dixwest ku xwe biteqînin bûn.

Fermandarê fecwa Selaheddîn ya hêzên antî-têrrorê, Hazim Kerîm, ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuyand ku van şervanên DAIŞê, bi bikaranîna erebeyên bombekirî, tecrube dikir ku pêşdeçûna hêzên iraqî ber bi Mûsilê rawestînin.
*(rudaw.net, 14.03.2017)*

***63.000 penaberên Mûsilê li Kurdistanê***
Sîvîl ji Mûsilê, bajarekî ku nêzîkî Kurdistanê ye, lê ku ji derevyî desthilata wê ye (ew girêdayî hukûmeta Bexadê ye), ber bi Kurdistanê direvin. Heta nuha, 63.000 ji wan li 3 kampên Kurdistanê, Hesen Şam, Xazir û Sewdinan, hatine bi cî kirin.
*(rudaw.net, 05.03.2017)*

***500 polîsên îranî li Mûsilê şerr dikin***
Rojnameya brîtanî Times daxuyand ku 500 pasdarên (polis) îranî, li tenişta hêzên iraqî û amerîkî, li Rojavaya Mûsilê şerrê Dewleta Islamî dikin.

Birêvebiriya mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, ku li Iraqê şerr dikin, ev nûçeya Times derewand.
*(rudaw.net, 14.03.2017)*

***230 sîvîl tên kuştin***
***Di 23 Adar 2017 de***, 230 sîvîlên Rojavaya Mûsilê, ku ji wan gelek zarok, ên ku xwe li kîlerên (binerd) malên hilweşiyayî veşarti bûn, hatin kuştin. UNICEF û Rêxistina Cihanî ya Tendurustiyê "WHO" hişyarî ji hêzên hevbend re şandin, lê evên dawîn Dewleta Islamî bi vê yekê tawanbar kir.
*(rudaw.net, 25 û 26.03.2017)*

***Keçeke Yezîdî tê rizgar kirin***
***Di 31 Adar de***, keçeke Yezîdî ya 22 salî ji Dewleta Islamî, li Mûsilê, hat rizgar kirin û ji malbata wê re vegerandin. Ev yek ji aliyê berpirsiyarê Buroya Rizgarkirina Kurdên Yezîdî li Duhokê, Huseyn Koro, hat daxuyandin (îlan kirin).

Di Îlon 2014 de, hukûmeta Kurdistanê ev buro ji bo rizgarkirina Kurdên yezîdî vekiri bû. Ji wê demê de, nêzîkî 3.000 ji wan hatine rizgar kirin.
*(rudaw.net, 31.03.2017)*

**10 JINÊN DAIŞ LI KURDISTANÊ TÊN RAGIRTIN**
Li zîndanên Kurdistanê, 10 jinên ku bi endambûna Dewleta Islamî û El-Qaida hatine tawanbar kirin hene. Hin ji wan ji bo xweteqandinê hati bûn û hin jî bitenê ji bo ku mêrên wan DAIŞ bûn. Kovara amerîkî Foreign Affaires li ser van jinan nivîsî.
*(rudaw.net, 14.03.2017)*

**REWŞA PENABERAN LI DUHOKÊ**
***Di 13 Adar de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, bi berpirsiyarên parêzgeha Duhokê re civiya, ji bo giftûgokirina rewşa penaberan.

Jimareke mezzin ji penaberan li vê parêzgehê hene û ew ji rûniştevanên bajarê Duhokê bêtir in.
*(rudaw.net, 13.03.2017)*

**BÎRANÎNA HALABCA**
***16 Adar 2017*** 19mîn bîranîna nijadkujiya Halabca bi çekkên kîmyayî, ku di 1988 de ji aliyê dîktator Saddam Huseyn hati bû kirin, e. Ew li herderê Kurdistana Iraqê û li 3 perçeyên din ên Kurdistanê hat bi bîr anîn.
*(rudaw.net, 16.03.2017)*

**BERZANÎ FILLEYAN PÎROZ DIKE**
Serok Mesûd Berzanî Filleyên Kildanî, Suryanî û Asûrî, ji bo sersala wan Ekîto, pîroz kirin. Wî got ku Kurdistan welatê hemiyan e û ku divê ku çanda bi hev re jiyanê ya hemî pêkhateyên olî û êtnîkî bê parastin û kûr kirin. Wî hêvî kir ku kesên ku tê de weka penaber dijîn karibin di zûtirîn dem de vegerin malên xwe û ku pêşeroja wan were dabîn (te'mîn) kirin.
*(rudaw.net, 31.03.2017)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

**PÊŞMERGE LI ENIYÊ NE**
Pasdaran (polîsê îranî) daxuyand ku Pêşmergeyên PDKÎ (Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê) li ciyên cihê yên eniya Kurdistana Îran û Iraqê ne û ku wan tê de di 09 Adar de tevgereke leşkerî kir.

Ji bo ku nehêlin ku PDKÎ êrîşan li hundirê Kurdistana Îranê amade bike, fermandarên bilind ên Pasdaran li Urmiyê, li Kurdistanê, civiyan.
*(rudaw.net, 10.03.2017)*

**GIRTIYEKE KURD JI SEROK RE DINIVÎSE**
Girtiya ramyariyî (siyasî) ya kurd, Efsane Beyazîdî, li zîndana Kirmanê ye. Wê nameyek ji Rêberê Şoreşê, Alî Xameneyî, re nivîsî û tê de got ku servîsên dizzî "Ittilaat" yên Bokan û Urmiyê ew bi tundî, 90 rojan, êşkence kir û bi êrîşkirina cinsî tehdîd kir. Lê servîsa ewlehiyê ev name stend û girtî xist hucreyeke tenha. Rêxistina mafên mirov jî dilniya (te'kîd) kir ku Efsane gelek hat êşkence kirin.

Efsane Beyazîdî xwendekareke bajarê Bokanê ye. Di havîna buhurî de, ew ji aliyê Dadgeha Şoreşger a Mahabadê bi 4 sal zîndan hat tawanbar kirin û birin bajarê îranî yê Kirmanê, ji bo "propaganda li dijî Komara Islamî û hevkarî bi hêzên Kurdistana Îranê re".

Di 2013 de, Efsane hati bû ragirtin û piştre, li hemberî dayîna 100 milyon tumen (pereyê îranî), hati bû azad kirin. *(rudaw.net, 27.03.2017)*

**4 KOLBER DIMIRIN**

***Di 21 Adar de***, ji sedema ketina berfê li gundê Tirsawa, li nêzîkî bajarê Xoyê, parêzgeha Urmiyê, 4 kolber (barhilgir) mirin û yek jî birîndar bû. Ew ji Kurdistana Tirkiyê vegeriya bûn. Hîva Sor çû wê derê û laş di demjimêr 7.30 a serê sibê de hatin derxistin.

Di vê zivistanê de, 8 kolberên din jî li Urmiyê miri bûn. Ew neçar dimînin ku riyên metirsîdar (bi tehlike) bistînin, ji bo ku Pasdarên îranî riyên sînorî digirin. Sînorekî 90 km di navbera Xoyê û bajarê Wanê, li Kurdistana Tirkiyê, heye.
*(rudaw.net, 22 û 23.03.2017)*

**SEROKÊ ÎRANÎ SEREDANA KURDISTANÊ DIKE**
***Di 25 Adar de***, serokê îranî, Hasan Rûhanî, tevî şandekê gihajt Sinê, li Kurdistanê. Ew li firokexaneyê ji aliyê parêzgarê Sinê, Abdul-Muhammed Zahidî, hat pêşwazî kirin. Ewê projeyên di warên pîşesazî (sina'et), çandin û ênêrjiyê de giftûgo bikin. Ji bo van projeyan, ewê ji 800 million dolar bêtir bê terxan kirin (veqetandin) û ji bo 6.000 kesan kar bê dabîn (te'mîn) kirin.

Parêzgeha Sinê yek ji girîngtirîn ên Kurdistana Îranê ye. Tê de ji milyonek û 603.000 kes bêtir dijîn. 70.8% li bajaran û 29% li gundan dimînin.
*(rudaw.net, 25.03.2017)*

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***Munbic***

***Di 02 Adar 2017 de***, piştî rizgarkirina beşeke mezzin ji navçeya Munbicê (li bultena me ya buhurî binêre), Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", ku tê de mezzintirîn hêz a Kurdên Yekîtiya Parastina Gel "YPG" ye, ji 47 gundên wê bêtir dan hukûmeta sûrî. Wan daxuyand ku wan ev yek bi erêkirina Rûsya kir.

Bi vî awayî, li Rojavaya Munbicê navçeyeke fireh di nav destên hukûmeta sûrî de ye. Li Munbicê hêzeke amerîkî jî heye.

***Di heman rojê de***, HSD daxuyand ku wan 12 çekdarên dijberiya sûrî, yên bi navê Mertala Firatê, kuştin.

Hêzeke leşkerê rûsî li Munbicê bi cî bûye û çavdêriya (kontrol) gundan, bi hevkariya leşkerê sûrî, dike.
*(rudaw.net, 03, 13.03.2017)*

***El-Bab***

Di çarçeveya tevgera bi navê Mertala Firatê de, 4 serbazên (esker) tirk birîndar bûn. Tê gotin ku êrîş ji Munbicê, ji aliyê Yekîneyên Parastina Sîvîl "YPS" hat kirin.
*(rudaw.net, 06.03.2017)*

***Şam***

***Di 10 Adar de***, 2 teqîn li Şamê bûn. 40 kes hatin kuştin û gelek jî birîndar bûn. Li gora Çavdêrgeha Mafên Mirov li Sûriyê, amanc hecciyên şîî bû.

Şerr di navbera hêzên dijberiya sûrî û yên hukûmeta sûrî de dajo (dewam bike). Firokeyên şerr ên sûrî gelek tax têk birin (xerab kirin). Fermandariya dijberiya islamî, Jeys El-Islam (Leşkerê Islamê), dibêje ku di navbera 22 û 25 Sibat 2017 de, 28 serbazên hukûmî hatin kuştin û 8 tank hatin têk birin.
*(rudaw.net, 11, 26.03.2017)*

*(rudaw.net, 07.03.2017)*

***100 serbazên amerîkî û 50 tank li Kurdistanê***

40 tank û ji 100 serbazên amerîkî bêtir gihajtin firokexaneya Rimêlanê, li parêzgeha Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê. Ev yek, ji deriyê sînorî yê Sêmalka, yê Kurdistana Iraqê. Hukûmeta sûrî ev yek bi dagîrkirina axa Sûriyê bi nav kir.

Ji berê, çavkaniyên hukûmeta sûrî daxuyandi bû ku 200 serbazên erdî yên amerîkî li dora Munbicê bi cî bû bûn.

***Di 29 Adar de***, karwaneke din, ku tê de 10 tank hebûn, gihajt.
*(rudaw.net, 14, 31.03.2017)*

***Amerîka rahênana dijberiyê dike***

Fermandarên Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD, ku Kurd serkêşiya wan dikin) dilniya (te'kîd) kir ku alîkariya Amerîka, ji ezman û ji erd, û ji aliyê rahênanê (tedrîb) jî, her ku diçe bêtir dibe. Ew wan ji bo şerrê Reqqa û Dêr El-Zorê amade dike.
*(rudaw.net, 16.03.2017)*

***Hêzên kurdî nêzîkî Reqqa dibin***

Şervanên HSD 50 km nêzîkî Reqqa ne. Di çarçeveya Tevgera Hêrsa Firatê de, şerrên tund li dora gundê Cideydet Xabûr bûn. Erebeyên bombekirî yên Dewleta Islamî hatin pûç kirin.

***TEVGERA REQQA***

***Civîna Rûsya, Tirkiye û Amerîka***



Fermandarên leşkerên Rûsya, Tirkiye û Amerîka li bajarê Antalya, li Tirkiyê, civiyan. Ev yek ji bo giftûgokirina tevgera stendina bajarê Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê. Tirkiye naxwaze ku YPG'ên kurdî beşdarî wê bibin.

***Efrîn***

***Di 22 Adar 2017 de***, leşkerê tirkî gundên Efrînê bombe kirin. Kurdên PYD êrîşî leşkerê tirkî li Reyhanliyê, li nêzîkî Hatayê (Iskenderûn), li Tirkiyê, kir. Serbazekî tirk hat kuştin.
*(rudaw.net, 22.03.2017)*

***Di 23 Adar de***, ev hêz gihajtin vî gundî û kari bû di 10 demjimêran (saet) de, bi alîkariya firokeyên hevbendiya navneteweyî, Dewleta Islamî dorpêç bikin.

Piştre, firokexaneya Tabqa ji aliyê van hêzan hat çavdêrî (kontrol) kirin û ew ji 3 aliyan ber bi bajarê Reqqa pêş de çûn.
*(rudaw.net, 25, 28.03.2017)*

***Jinên Ba'sî li Kurdistanê rahênanê dikin***
Nêzîkî 150 jinên ereb, ên partiya sûrî ya desthilatê, Baas, li gundê Xirbet Emo, 2 km nêzîkî Qamişlî, rahênan (tedrîb) kir. Li dawiyê, alîkara serokê vê partiyê, Hilal El-Hilal, û serokê buroya agahdarî û çandê yê vê heman (eynî) partiyê, beşdarî merasîmê bûn.
*(rudaw.net, 26.03.2017)*

***REWŞA ZAROKAN***

***Di 12 Adar 2017 de***, UNICEFê rapporek li ser rewşaq zarokan li Sûriyê weşand. Ew tê de dibêje ku di 2016 de, 652 ji wan hatin kuştin û ku rêjeya (nisbet) mirina wan gihajt 20%. Ji wan, 255 li nêzîkî dibistanên xwe hatin kuştin. Di 2017 de, ji 850 zarok bêtir hatin çekdar kirin, ango du qatên par. 338 êrîş li ser nexweşxaneyan hatin kirin û piraniya qurbanan zarok bûn. 280.000 zarok li navçeyên dorpêçkirî ne û ew tê de di mercên gelek zor de dijîn. Ji 6 salên şerr de, 6 milyon zarok li benda alîkariya mirovî ne. 2 milyon û 300.000 zarok, tevî malbatên xwe, li kampên penaberan, ên li Tirkiye, Urdun, Iraq, Misr û Lubanê, dijîn. UNICEF dibêje jî ku ji bo ku karibin bijîn, hin malbat keçên xwe di temenekî gelek piçûk de dizewicînin yan jî wan didin kar kirin.
*(rudaw.net, 14.03.2017)*

**PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***RRAGIRTIN Û TÊKBIRIN***

***Li herderê Kurdistanê***
Li Kobanî, 10 endamên ENK-Sê hatin ragirtin. Li Qamişlî, Dêrik, Dirbêsiyyê, Serê Kaniyê, Amûdê, Girkê Legê, buroyên wê hatin têk birin (xerab kirin) û şewitandin. Ji 30 endamên wê bêtir hatin ragirtin. Bi ser de jî, erebeyên PYD li kuçan gerriyan û ji rûniştevanan xwest ku li dijî ENK-Sê derkevin.
*(rudaw.net, 05, 07, 08, 15, 21.03.2017)*

***Li Dêrikê revandin***
ENK-Sê daxuyand ku di ***24 Adar*** de, nimînendeyê (temsîlcî) Cuhanên vê koordinasyonê li Dêrikê, Fuad Ibrahîm, ji ereba xwe, li gundê Mameşûrê, hat revandin û birin ciyekî nenas.
*(rudaw.net, 25.03.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**SWÊD**

***Panêlek li ser Kurdistana Îranê***
Panêlek li parlementa swêdî ji aliyê Koma Hevalên Kurdan li Swêdê hat pêk anîn. Sekreterê giştî yê PDKÎ, Mustafa Hicrî, beşdarî wê bû.

Piştî konfêransê, Hicrî ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ji dema hatina serokê îranî Hasan Rûhanî desthilatê de, tu gav ber bi pêkhatên vî welatî ne hatiye avêtin. Û wî got jî ku li Kurdistanê rewş xerabtir bûye û ku li gel propaganda rejîmê, rêjeya (nisbet) îdam û zîndankirinan bilindtir bûye.

Hev-serokên Koma Hevalên Kurdan li Swêdê, Calo Sumaroga û Sibel Arsaln; Îraniya ku Xelata Nobelê ya Aşîtiyê stendi bû, Şîrîn Abadî; û kesahiyên belûç, ereb, azerî û tirkmen amade bûn.
*(rudaw.net, 09.03.2017)*

**ALMANYA Û HOLLANDA**

***Serokê tirk : Alman û Hollandî nazî ne!***
Serokê Tirkiyê, Recep Tayyıp Erdoğan, xwest ku gerrek li Ewropa bike, ji bo ku rastî derhatiyên tirk were û wan iqna bike ku dengê xwe bidin rêfêrandumekê li Tirkiyê, ji bo danîna pergaleke (système) serokatiyê li vî welatî. Lê hukûmetên almanî û hollandî ne xwest ku pêşwaziya wî bikin. Gelek bi hêrs, wî li Tirkiyê axaftinên mezzin kirin û Alman "nazî" û Hollandî "bermayiyên naziyan" bi nav kirin!
*(rudaw.net, 06.03.2017)*

***Hollandiyek nayê hiştin ku biçe Kurdistana Iraqê***
Ji bo sezakirina (cezakirin) Hollanda, Tirkiyê ne hişt ku Hollaniyek, Antony Willehm, bi erebê, tevî çend hevalên kurd, ji Kurdistana Tirkiyê derbasî Kurdistana Iraqê bibe. Ew ji aliyê serbazên (esker) tirk li deriyê sînorî yê Kurdistana Iraqê, Deştan/Serê Zêrê, li nêzîkî Şemzînanê, hat ragirtin.
*(rudaw.net, 14.03.2017)*

***Angela Merkel pêşwaziya Kurdekî Sûriyê dike***
Serokwezîra almanî Angela Merkel li buroya xwe li Berlînê pêşwaziya berpirsiyarê pêwendiyên derve yên ENK-Sê (Encumena Neteweyî ya Kurdistana Sûriyê), Siyamend Haco, kir. Wan rewşa Kurdistana Sûriyê, êrîşên PYD li ser buroyên ENK-Sê, ragirtina berpirsiyarên ramyariyî (siyasî) yên kurd û nehiştina Pêşmergeyên wan, ên bi navê "Roj", ku derbasî Kurdistana Iraqê bibin giftûgo kirin.
*(rudaw.net, 23.03.2017)*

**MALÊZYA**

***7 DAIŞ dixwest ku şahê suûdî bikujin***
Serokê polîsê malêzî, Xalid Ebû Bekir, di konfêranseke çapemeniyê de daxuyand ku 7 endamên Dewleta Islamî

hatin ragirtin, ji bo ku wan kuştina şahê suûdî Selman Ebdul-Ezîz, li ber otêla wî, li Kuala Lampur, paytexta Malêzya, amade dikir. Û wî got jî ku ew hemî endonêzî û yemenî bûn.
*(rudaw.net, 07.03.2017)*

**SWÎSRA**

***Lutkeya Jenêv 4***
Li dawiya civîna mezzin a Jenêv 4, ya li ser borana (krîz) sûrî, şandê taybetî yê UNê li Sûriyê, Steffan De Mistura, 12 xalên li ser vê boranê daxuyandin, lê tuyek ji wan li ser Kurdên Sûriyê ne nivîsî.
*(rudaw.net, 08.03.2017)*

**U.N.**

***Balyoza Amerîka pêşwaziya Nadya Murad dike***



Balyoza (sefîr) Amerîka li bal Rêxistina Neteweyên Yekbûyî "U.N.", Nikki Haley, pêşwaziya **Nadya Murad**, keça kurd a yezîdî, ku navê Balyoza Niyyeta Baş lê hatiye kirin û Xelata Sakharov ji bo Aşîtiyê, ya Parlementa Ewropî, stendiye (li bultena me ya buhurî binêre), kir. Balyoz got ku ewê Amerîka mafên hindikayiyên êtnîkî û olî li cihanê, Yezîdî jî tê de, biparêze.
*(rudaw.net, 10.03.2017)*

**AMERÎKA**

***Amerîka rûmeta Pêşmerge dike***
***Di 22 Adar 2017 de***, li Washingtonê konfêranseke 68 welatên endamên hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî bû. Ji bo cara yekemîn, nimînendeyê (temsîlcî) Kurdistana Iraqê, Fuad Huseyn, beşdarî wê bû û bi germî hat pêşwazî kirin. Iraq ji aliyê serokwezîrê xwe, Heyder Ebadî, hati bû nimînende kirin.

Roja din, berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve, Mark Toner, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku rewşa Kurdistanê jî hat giftûgo kirin û ku Pêşmerge hêzeke mezzin in.
*(rudaw.net, 24.03.2017)*

**BRÎTANYA MEZZIN**

***Kurdek xwarin dide polîsan***
Ibrahim Doğuş Kurdekî Tirkiyê ye. Ew ji 23 salan de li Londonê dijî û tê de xwaringeheke (resaurant) wî heye. Roja êrîşa têrrorîst li nêzîkî parlementê, di 22 Adar 2017 de, wî ji demjimêr 15 heta 23.30 xwarin da 500 polîs û karmendên ewlehiyê. Hemî rojnameyên Londonê ev nûçe belav kir û Doğuş mêrxas (qehreman) bi nav kir.
*(rudaw.net, 28.03.2017)*

**PARLEMENTA EWROPÎ**

***Gelê kurd hêjayî serxwebûnê ye***
Parlementerê brîtanî li Parlementa Ewropî, Charles Tannock, li ser tora xwe ya civakî got ku : *"Eger gelek hebe ku hêjayî destnîşandana çarenûsa xwe ye û xwedîbûna dewleteke serbixwe be, ew eglê kurd e. Brîtanya Mezzin ev yek di 1920 soz da bû".*
*(rudaw.net, 31.03.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

## ERMENISTAN Û KURDISTAN

***Kurdek Ermenî ji Nijadkujiyê kutah kiri bûn***



Komeke lêgerên ermenî, bi alîkariya ronakbîrên kurd, lêgerînek (lêkolîn) li ser kesahiya kurdî, **Jemîl Behrî Başa**, ku Ermenî ji Nijadkujiya (qetliam) ku ji aliyê Imperatoriya Osmanî di 1916 de hati bû kirin kutah (xelas) kiri bûn, kir.

Jemîl Behrî Başa di 1892 de, li gundê Hobka, yê girêdayî Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, bû bû. Wî li akadêmiya deryayî ya osmanî xwend û bû kolonêl. Piştre, yasa (huqûq) xwend. Li dawiyê, bû serokê leşkerê osmanî li Kurdistana Tirkiyê.
Di 10915 de, leşkerê osmanî qirkirinên Ermeniyan ên girseyî (bi kitle), li nêzîkî Reqqa û Dêr El-Zorê, li Sûriyê, kirin. Li gora lêgerên ermenî, Jemîl Başa jiyana bi sedan ji wan kutah (xelas) kir. Û ew bi keça keşşeyekî ermenî, "Dikranohi Gulizian", re zewicî. Jina wî li ser ola xwe ya fille ma û du zarokên wan bûn.

Piştî dawiya şerrê cihanê yê 1mîn, ew li Helebê bi cî bû û tê de dibistanên kurdî, tirkî, erebî, ermenî, ingilîzî û almanî vekirin. Wî çend ziman dizani bûn û helbest bi tirkî dinivîsîn.
Di dema "mandat"a fransî li Sûriyê de, ew beşdar bû serhildana leşkerî li Helebê û hat ragirtin. Di 25 Gulan 1967 de li Helebê wefat kir.

Li dawiyê lêgerên ermenî dibêjin ku fîlmek li ser karsazê alman, Oskar Stchindler, ku jiyana bi sedan kesên di gorên hevrayî de kutah kiri bû, 7 xelatên Oskar stendin, û ku pêwîst e ku fîlmek li ser Jemîl Başa jî bê çêkirin.
*(rudaw.net, 26.04.2017)*

## KURDISTANA IRAQÊ

***Yariya bedewbûna zilaman li Kerkûkê***
Cara yekemîn, li bajarê Kerkûkê yariyeke (musabaqa) bedewbûna zilaman, a bi navê "Cuhanê Bedew yê Kerkûkê yê 2017" bû. 20 xort, ku ji wan Kurd, Ereb û Tirkmen, beşdarî wê bûn. Kurdek, Ehmed Ednan, yekemîn derket. "Jury" ji pisporên "body building", portiraş "berber" û "design"an pêk hati bû. 50% ji denganê ji aliyê "jury" û 50% ji yê temaşevanan bûn.
*(rudaw.net, 01.03.2017)*

***"Qehweya Pirtûkê"***
Rûniştevanekî Hewlêrê "Book Café" (Qehweya Pirtûkê) vekir, ji bo handana (teşwîqkirin) çanda xwendinê.
*(AFP, rudaw.net, 11.03.2017)*

***Yariya navneteweyî ya hespan***
Ji bo cara yekemîn, yariyeke (musabaqa) navneteweyî ya hespan, bi navê "Newroz", li Hewlêrê hat pêk anîn. Ew bi sponsoriya tora mêdyayî ya kurdî ya Rûdawê bû. Hespên kurdî bi ala Kurdistanê beşdarî wê bûn.

Di yariya 1mîn a 100cm. de, Urduniyek bû 1mîn û jineke kanadî bû 2mîn. Di ya 110 cm. de, Iraqiyek bû 1mîn. Di ya 120 cm. de, jineke iraqî, Mizîle El-Şîbanî, bû 1mîn, û jineke kurd, Esra Erşed, bû 2mîn.
*(rudaw.net, 18.03.2017)*

***Newroz bi Yezîdî û Filleyan re tê pîroz kirin***
***Di 21 Adar de***, li qezayê Şêxanê, yê girêdayî Duhokê, misilman, fille û yezîdî bi hev re sersala kurdî Newroz pîroz kir û agir vêxist.
*(rudaw.net, 22.03.2017)*

## TIRKIYE Û ALMANYA

***Şanoyek bi 3 zimanan***
Metîn Mîrza şanoyek (theater) bi 3 zimanan, kurdî, tirkî û almanî, amade kir. Ew çîroka 3 zilaman, kurd, tirk û alman, ku li rawesteke otobusê ne, lê ku ji hev du tênagihêjin (fehm nakin), dibêje. Ewê ev şano li Istanbulê û piştre li bajarên cihê yên Almana bê nîşan dan.
*(rudaw.net, 03.03.2017)*

***150 nîşan ji atlêtekî re***
Atlêt Weysi Aslan Kurdekî Amedê (Diyarbekir) e. Heta nuha, wî 150 nîşan stendine. Nuha, ew fêrên atlêtîsmê dide zarokên Amedê.
*(rudaw.net, 05.03.2017)*

## ÎRAN Û KURDISTANA IRAQÊ

***Mannekenk li Hewlêrê***
Mannekena (mannequin) îranî Sara ji salên dirêj de li Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, dijî û bi kurdî dipeyive. Malbata we li Îranê dijî. Di demên dawîn de, ew navdar bûye û dixwaze ku navendeke moda li Hewlêrê veke. Ew dibêje ku li Kurdistanê gelek hevalên wê hene, ku dixwazin ku pê re kar bikin.
*(rudaw.net, 06.03.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Yaneya jinan a futbolê***

Ji nêzîkî 8 salan de, li Colemêrgê (Hekkari) yaneyeke (équipe) jinan a futbolê, "Hakkarigücü", heye û ji 25 lîzvanan pêk hatiye. Ew di Fêdêrasyona Futbolê ya Tirkiyê (TFF) de 2mîn e.
*(rudaw.net, 07.03.2017)*

**ISRAÎL - AMERÎKA**

***Şaha bedewbûnê ji Kurdan hez dike***

Şaha berê ya bedewbûnê, ya israîlî-amerîkî, Yael Markovitch, ji 5 saliya xwe de tevî malbata xwe li Amerîka dijî. Wê ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ew ji Kurd û Kurdistanê hez dike. Û wê got jî ku eger ew were vexwendin (dawet kirin), ewê gelek bixwaze ku biçe wê derê û ku Israîlî ji Kurdan hez dikin. Di 2012 de, ew şaha bedewbûnê ya Israîlê hati bû hilbijartin.
*(rudaw.net, 08.03.2017)*

**BOSNYA**

***Gundên kurdî***

Nivîskarê bosnî Isnam Taljiê pirtûkek nivîsî û tê de got ku gundê Kurtiêî, 242 km ji paytext Sarayêvo, kurdî ye. Ew di 1543 de ji aliyê Imperatoriya Osmanî hati bû vegirtin (işgal kirin). Serbazên (esker) kurd ên vî leşkerî ew ava kiri bû. Ev pirtûk hat wergerandin zimanên cihê, lê bi tirkî hat qedexe kirin. Lêgerînên din nîşan da ku çend gundên din jî kurdî bun û ku nuha navê malbatekê "Kurda" ye.

Yek ji rûniştevanên gundê Kurtiêî got ku ew dizane ku riha wî (esl) kurdî ye, lê ku mixabin ew bi kurdî nizane û gelek kêm tiştan li ser Kurdan dizane. Û wî got jî ku bapîrên wî digot ku Kurdistan welatekî gelekxweş e.
*(rudaw.net, 22.03.2017)*

**TIRKIYE**

***Bajarên kurdî li pêşangehekê li Ankara***

2mîn pêşangeha geştiyarî (tûrîstîk), ya bi navê Travel Expo 2017, li Ankarê bû. Bajarên Kurdistanê tê de hatin nîşan dan. Bajarên Amed (Diyarbekir) û Şirnexê (Şırnak) bala mêvanan kişandin, ji bo ku tê de gelek bermayiyên dîrokî hene. Bi ser de jî, Amed hatiye xistin nav lîsteya UNESCO. Alîkarê birêvebirê buroya tûrîsmê li Amedê, Cemil Alp, ji Rûdawê re daxuyand ku ew bajarekî gelek kevn e û ji 12.500 salan de heye.
*(rudaw.net, 26.03.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Fêstivala berfê li Colemêrgê***

Navenda Sky (Navenda Kaşûnê) ya Merga Botan fêstivaleke berfê li Colemêrgê (Hakkari) pêk anî. Ev yek, bi alîkariya rêxistinên cihê yên vê parêzgehê (wilayet). Piştî axaftina vekirinê ya parêzgarê Colemêrgê, Cuneyit Toprak, stranên kurdî û tirkî hatin stiran. Toprak û endamên protokolê dîlanên kurdî kirin.
*(rudaw.net, 27.03.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl hatiye nivîsîn, ji aliyê Jona Mustafa hatiye wergerandin hollandî û ji aliyê Benedikte Von Achen hatiye wergerandin ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter û Nevîn Gerits û Jona û Benedikte hatiye kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*





FÉDÉRATION WALLONIE-BRUXELLES

**Vlaamse Gemeenschapscommisie**